

## Daxuyaniya 14.mîn pilînoma Komîteya Navendî a PDKÎ

»»»» R:3



*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (290) 20-11-2016 Buha (1000) Tûmen*





## Mistefa Hicrî nameya pîrozbahiyê ji Trump re şand

»»»» R:2



## "Rasan"a Rojhilat

»»»» R:2

# Kabîneya Trump, û şîn û taziya Xamineyî





**Baskirina ji vebijêrkên ku egera hilbijartina wan bo kabîneya nû ya Amerîkayê heye, rejîma Îranê pirr nîgeran kiriye.**

"john Bolton" balyozê pêşîn ê Amerîkayê di NY de, ku ji wî wekî yek ji berbijarên Wezareta Karê Derve ê dewleta Trump tê bi nav kirin, di hevpeyvîneke de ragehand: "Ayetullah gefeke cidî ne, li ser aştiya navneteweyî, û ewlehiyê di Rojhilata Navîn de. Helbet sernixûniya wan hemû kêşeyan çareser nake, lê gefên micid ji nav dibe".
Can Bolton pêdagirî dike, ku dibe Amerîka pişta opozisyona Îranê bigre, bona hiloşandina rejîma Îranê.
Vebijêrkeke din ya Trump, "Mike Pompeo" ye, ku navbirî renge bibe serokê "SIA". Navbirî gellek dijî lihevkirina navikî ye. Navbirî di twitter a xwe de nivîsandibû: "Ez li benda hiloşandina lihevkirina karesatbar ya navikî me, û pêwîst e piştevanê herî mezin ê terorîzmê jî, bête jinavbirin".
Jeneralê xanenişîn ê bi nave "Michael Fallon" jî, ku renge bibe şêvirmendê ewlehiya neteweyî a Amerîkayê, di pirtûka xwe de nivîsandiye: "Nameyeke "Bin Ladin" heye, ku eşkere dike, Elqa'ide di Îranê de li ser çekên kîmyayî û biyolojîk kar dike".
"Jeff Sessions" jî vebijêrkeke din a Trump e, bona wergirtina serdozgeriya Amerîkayê, ku ew jî Spaha Pasdaran wekî girûpeke terorîstî dizane.

Li gora tora nûçeyan a "Foxnews"ê jî, tê pêşbînîkirin, ku jeneral "James Mates" ji rexnegirên lihevkirina navikî, vebijêrkeke din ya Trump be, bona posta Wezareta Parastinê a Amerîkayê. Nûçeyên di warê wan destnîşankirinan, û pêdagiriya Trump li ser kesên ku gellek dijî rejîma Îranê ne, di demekê de belav dibin, ku Xamineyî rêberê Komara Îslamî ya Îranê li dijkiryara bi hilbijartina Trump îdia kiribû, ku ew seba vê bûyerê tazîdar nabin.

## Efxanistan: Rejîma Îranê piştgiriya Talibanê dike



**Efxanistanê bi awayekî fermî ragehand ku rejîma Îranê piştevaniyê ji Talibanê dike.**

Berpirsyarên ewlehiyê ên efxanistanê bo yekem car bi awayekî fermî rejîma Îranê tawanbar kirin bi piştevaniya ji girûpa terorîstî ya Talibanê.

Piştevaniya leşkerî û malî ya hikûmeta Îranê ji Talibanê pirseke nû nine, lê eva yekem car e ku bi awayekî fermî dewleta Efxanistanê rejîma Îranê bi piştevaniya ji Talibanê tawanbar dike.

Li gora DW, berpirsyarên dewleta Efxanistanê radigehînin, ku Tehran ne tenê ji vê girûpê piştevanî dike, belkû alîkariyên xwe jî zêde kirine.

Li gora vê raporê, waliyê wilayeta Ferah a Efxanistanê jî roja 19'ê Xezelwerê di hevpeyvîneke bi televîzyona Kabolê re got: "Îran di nav kempên xwe de, perwerdehiya leşkerî dide hêzên Talibanê".

Wehîd Mujde, ku serdemekê berpirsek bûye di Wezareta Karê Derve ya Efxanistanê de, bi DW ragehand: "Herçend di wan salên dawiyê de berdewam bas ji alîkariya rejîma Îranê bi Talibanê hebûye, lê tu carî dijkiryareke fermî tunebûye. Bi taybetî li çav wan dijkiryarên ku Efxanistanê di hemberî Pakistanê de ji xwe nîşan dane, û Pakistan bi awayekî fermî şermezar kirine. Lê niha wisa dixuye ku dewleta Efxanistanê di vê derheqê de micid e".

## Sergotar

### "Rasan"a Rojhilat

Kerîm Perwîzî



Xebata micid û pilandarêtî, û di heman demê de bixwîn, a Kurdistana Rojhilat, di qonaxeke hestiyar ya dîrokî de, di pêxema berjewendiya beşeke din ya Kurdistanê de ber bi sariyê ve çûbû, û çerxên wê, bi tewahî bûbûn, yan sekinîn!.

Bîst sal bi ser vê sarbûnê re derbaz bû, û xebat bi lawazî berdewam bû. Di van bîst salan de, Başûra nîştiman geşe kir, û berjewendiyên xwe di hinek aliyan de misoger kirin, û di hinek biyavan de jî, şêweyeke din bi xwe ve girt.

Di van bîst salan de, rejîma hov di Tehranê de hovtir bû, û xelkê Kurdistana Rojhilat jî, xwazyarê basa vegerxistina xebatê di şêwazeke cidîtir de bûn, û pêdagirî dikirin li ser berbirûbûna bi rejîmê re.
Berjewendiya xelkê Kurdistanê tu carî di bêdengiyê de nebûye, berjewendiya beşên din ên Kurdistanê jî hekî serdemekê wisa hatibe lêkdan jî, lê niha di bêdengiya Rojhilata nîştiman de nîne. Xortên welat jî amade ne, bo serhevxistina şoreşê.

Ew qonaxa xebatê, ku tê de şoreşê radikin ser piyan, û bi "Rasana Rojhilat" nav derxistiye, nabe di çarçoveyeke teng de bimîne. Dibe bi wateya tewaw ya peyvê bibe "Rasana Rojhilat". Dibe ew yek di bîra me de be, ku hêşta destpêka rakirina li ser piyan a

Dom: R 4

## Mistefa Hicrî nameya pîrozbahiyê ji Trump re şand

**Sekreterê Giştî yê PDKÎ di nameyekê de pîrozbahî ji Donald Trump, serkomarê nû yê Amerîkayê kir.**

**Eva deqa nameyê ye:**

Birêz Trump, Serkomarê Wîlayetên Yekgirtî yên Amerîkayê!

Bi hinceta serkevtina we yê birêz di 58'emîn gerra serkomariya Amerîkayê de, em pîrozbahiya gerim dibêjin we, û hêvî dikin ku di heyamê serokatiya xwe de bikarin xizmeteke berçav bi xelkê Amerîkayê bikin, û bibandor bin ji vegerandina aştî û ewlehiyê di Rojhilata Navîn de, ji rêya dabînkirina mafên netewî, ên neteweyên bêpar di herêmê de, û kurtkirina destê dewletên terorîst û dîktator di vê beşa cîhanê de.

Netewa Kurd li Rojhlata Navîn, heyamê 3 dehikan e, ku di pêxema azadî, wekhevî û mafê netewî yê xwe de xebatê dike, partiya min, Partiya Demokrata Kurdistana Îranê 71 sal e ku li dijî rejîmên dîktator yên Îranê, xebatê dike.

Komara Îslamî ya Îranê pitir ji 3 dehikan e ku hemû cure tevgereke azadîxwaziyê di Îranê de û bitaybetî di Kurdistanê de tepeser dike, û di vî heyamî de bi hezaran kes ji çalakên siyasî û kadr û pêşmergeyên partiya min, îdam û teror kirine.

Niha ev rejîme, ne tenê gelê Kurd û gelên din ên Îranê tepeser û serkut dike, belkî deshilat û nifûza xwe bi awayekî bê mînak li Rojhilata Navîn berfireh dike, û berdewam dixebite bona afirandina ne aramî, tevdanîkarî û şer û malwêraniyê, lewra em li ser vê baweriyê ne ku, bona cihgîrkirina aştî û awlehiyê hewce ye ku, deshilata vê rejîmê bê kêmkirin û bikeve bin zext û givaşek wisa de ku, mafên despêkî û siyasî ên netewên Îranê ku yek ji wan netewa Kurd e, dabîn bike.

Em hêvî dikin ku bi alîkarî û hevkariya gelên herêmê bitaybet gelê Kurd, di vê erkê de serkevtî bin.

**PDKÎ**
**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**

**11.11.2016'an a Zayînî**
**21.08.1395'an a Rojî**

## Diya şehîdekî rêya azadiya kurdistanê çû ber dilovaniya xwedê

**Dayka şehîd ''Erdeşîr Fîrozî '' Pêşmergê PDKÎ koça axiretê kir.**



Li gorî nûçeya gihiştî bi malpera kurdistanmedia, roja Sêşembiyê, rêkewt 25'ê Xezelwera 1395'an ya Rojî, xanêma "Îran Şerefî" Diya şehîd Erdeşîr fîrozî xelkê bajarî Kamiyaranê çû ber rehma xwedê.

Îran xanim, yek ji wan şêre jinên Kurdistanê bû ku hertim bi şanazî û serbilindî ve bas ji rêbaza kurê şehîd ê xwe dikir, û hertim hêvîdar û geşbîn bû, bi azadî û rizgariya gel û nîştiman.

Şehîd Erdeşîr Fîrozî, Pêşmergê PDKî, li sala 1342'an ya Rojî, li bajarê Kamiyaranê ji dayîk bûbû.

Piştî şorişa gelên Îranê, û eşkerebûna xebata PDKÎ, Erdeşîr fîrozî çeka şerefê avête milê xwe, û bû bi pêşmerge, lê mixabin rêkewt 29'ê Gelawêja 1360'an ya Rojî, di şerekî nexwastî da şehîd bû, û gilkoya wî di gundê ''Şayenî'' de ye.

PDKÎ sersaxiyê dibêje malbata navbirî, û xwe bi şirîk û pişikdarê xema wan dizane.

# Daxuyaniya 14.mîn pilînoma Komîteya Navendî a PDKÎ

**Deftera Siyasî ya PDKÎ derheq birêveçûn û bidawîhatina 14.mîn pilînoma Komîteya Navendî daxuyaniyek belav kir.**

Bona agehdariyê, em radigehînin ku 14.mîn pilînoma Komîteya Navendî ya PDKÎ hilbijartiya kongireya 15.mîn ya PDKÎ, demjimêr 9'ê sibehiya roja Şemiyê 22'ê Xezelwerê (12.11.2016)'an bi beşdariya endamên eslî ên Komîteya Navendî û endamên cihgir pêk hat, û piştî du rojan karê berdewam û bas û biryardan li ser mijarên destûra karê pilînomê, êvariya roja Yekşemiyê 23'ê Xezelwerê dawî bi karên xwe anî.

Pilînomê bi ragirtina deqeyekê bêdengî û rabûna ser piyan, bona rêzgirtina ji riha pak ya şehîdan bi taybetî şehîdên pakrewan ên îsal ên "Rsana" a Rojhilata Kurdistanê dest bi karên xwe kir.
Pilînomê destpêkê bernameya kar û destûra karê pilînomê ku pêştir, endamên rêberiyê jê hatibûn haydarkirin, xiste berbas, û piştî pejirandinê, pêvajoya karê pilînomê dest pê kir.

Di beşa yekem ya karê pilînomê de, sekreterê giştî ê PDKÎ behseka siyasî kir, ku tê de bas ji guherînkariyên di navbera du pilînoman hatibû kirin, ku piraniya aliyên pêwendîdar bi navçê, Îran û mesela Kurd bi giştî û mesela Kurd di Kurdistana Rojhilat bi xwe ve girtibû, û tê de qala encama kar û têkoşîna niha ya PDKÎ û tevgera Kurd kiribû.

Derheq Îranê, navbirî bas ji rewşa siyasî ya Îranê û bi taybetî encama lihevkirina 1+5 û Komara Îslamî ya Îranê kir, ku bi "bercam"ê hatiye naskirin. Qala boçûnên herdu aliyên lihevkirî hate kirin ku encama wê jî, destpêregihîştina Komara Îslamî bû, bi beşek ji darayiyên bilokekirî û destvekirîtirkirina Komara Îslamî bona firotin û derxistina petrolê.
Bi vî halî jî kêşeya bîmeyên gemiyên nefthilgir û danûstandin nekirina bankên mezin digel rejîmê, û nedana perê bilokekirî, her maye, ku vê yekê rejîm berbirûyê kêşeyan kiriye.

Her ew yek bûye sedem ku serbarê rakirina gemaroyan li ser "fenawerî" û "trombêlsaziyê" a Komara Îslamî, karê encamdayîna wan girêbestên ku digel welatên Ewropî girê daye, bi awayekî asayî û bi xatircemî ve kar pê nahê kirin, û beşa herî zêde di bêqederiyê de mane. Bi taybetî ku heya niha jî nehêlane Komara Îslamî karê kirîn û firotinê bi Dolar encam bide. Lewra heya niha jî pirsa "bercam"ê di nava dem û dezgehên rejîmê de cihê behsê ye, û hekî dewlet bi awayî erênî lê dinêre, lê belê muhafizekar bi awayekî rexnegirane bas jê dikin, û bi awayekî giştî em dikarin bêjin ku encama "bercam"ê, ew e ku berpirsê banka Navendî basê dike, û dibêje: Teqrîben "hîç".



Berevajiyê qewl û sozên Ruhanî jî, rêjeya bêkariyê, û zexta zêdetir ya dezgehên ewlekariyê, li ser xelkê zêdetir bûye.
Di vê behsa sekreterê giştê de bas ji asayîbûna pêwendiyên di navbera Îranê û Ewropiyan jî hate kirin, ku serbarê xwesta herdu aliyan bo vê pirsê, ku asayîbûna siyasî û tîcarî bi xwe ve digre, bi hêsanî ser negirtiye, û di vê derheqê de, Ewropiyaan şert û merc bo asayîbûna van pêwendiyan danîne, ku ew jî kêmkirina rêjeya îdaman, bi taybetî îdamkirina kesên bin 18 saliyê re, hewldana Komara Îslamî bona hişikkirina çavkaniyên terorîzmê, zelalsaziya malî, bergirî ji spîkirina pere û berçavgirtina mafê mirovan e.
Di vê basê de hatibû ku cîbicîkirina hemû wan şert û mercan ji destê Komara Îslamî nahê, lê bi sedema hewcehiya rejîmê bi Ewropayê û hezkirina welatên Ewropî ji bazarên Îranê, renge derheq wan şert û mercan de bi awayekî ne tewaw li hev bikin.
Di şirovekirina sekreterê giştî li ser rewşa Kurdistana Rojhilat de, amaje bi vê hate kirin ku, tewahiya zext û givaş û binpêkirina mafên ku di seranserî Îranê li ser xelkê hene, li Kurdistanê zêdetir û berçavtir in. Gotara nû li vê beşa Kurdistanê, "Rasan" a Rojhilat e ku, şiroveyê bi hûrî tekezî li ser bandorên wê yên erênî, li ser xelkê, û kadr û pêşmerge û endamên Hizbê, û dengvedana berfireh ya wê di medyayan de, û di encam de rakêşana bala xelkê û welatan li ser asta herêm û cîhanê de kiribû.

Di vê derheqê de pilînomê serbarê liberçavgirtina hemû xalên erênî yên "Rasan"ê, pêdagirî li ser berdewamiya "Rasan"ê kir, û bona bihêzkirin û berfirehkirina bandora "Rasan"ê, rêçareya çareserkirina kêmasiyên "Rasan" ê destnîşan kirin, û di heman demî de spas û pêzanîna xwe pêşkêşî kadr û pêşmerge, û endamên Hizbê li navxweyî Kurdistana Rojhilatê, û li derveyî welat, û herweha xelkê Kurdistanê û hemû ew partî û aliyên siyasî ku bi lêkdaneweyek waqi'bînane "Rasan" nirxandin û pejirandin û piştevanî jê kirin, anî ziman.

Her di vê derheqê de bona bihêzkirina aliyên din ên "Rasan"ê, ên weke rêkxistin, ragehandin û dîplomasiyê, rêçareyên nû hatin destnîşankirin. Li dirêjiya vê mijarê de, bal hate kişandin bo ser çalakiyên xelkî û tekoşîna "NGO"yan di hundir Kurdistana Rojhilat de. Pilînomê ev çalakî bi bandor dan zanîn û rêz ji xebatkarên di warên curbicur ên vê xebatê girt, û hêvî xwest ku berdewamiya piroseya "Rasan"ê bibe sedema pêkhatina derfetek zêdetir bona kar û çalakiyên wan.
Di beşek din a rapora sekreterê girşî de basek li ser rewşa taybet bi her yek ji parên din ên Kurdistanê hate kirin û tê de amaje bi xalên bihêz û kêmasiyên ser rêya her pareke Kurdistanê hatibû kirin, bitaybetî işare bi vê hatibû kirin ku di rewşa niha de, ku hemû ew welatên Ku Kurd bi ser wan de hatiye parvekirin, di rewşek aloz û xirab de ne, û ber bi xirabiya zêdetir ve diçin, eva derfetek e ku Kurd bikare bi parastina yekrêziya xwe, vê derfetê bi kar bîne, û berjewendiya giştî ya gelê Kurd li serweyî berjewendiyên rêkxiraweyî bibîne.

Di beşek din a karê pilînomê de raporta "Şoraya Nizamî" ya Hizbê ji aliyê berpirsê Şorayê ve hate pêşkêşkirin.
Raporê kar û çalakiyên kadr û pêşmerge û endamên Hizbê yê di navbera du pilînoman de li xwe girtibû. Raporê xalên bihêz û erênî ên tekoşîna vê heyamê bi zelalî destnîşan kiribûn û di heman demî de, kêmasî jî destnîşan kiribûn.
Pilînomê serbarê mandînebûn û rêzgirtina ji kar û çalakiyên kadr û pêşmerge û endamên Hizbê, careke din û di vê beşê de jî, spas û pêzanîna xwe pêşkêş kir, û bona bêtirkirin û bibandortirkirina xebata wan, nêrîn û rasipardeyên xwe anîn ziman.
Her di vê çarçoveyê de, pilînomê serbarê pêdagiriya li ser peywendiyên Hizbê digel hizb û rêkxiraw û aliyên Kurdî û Îranî, amadehiya xwe bona karê hevpar, bi merema rêkxistina xebata li dijî rejîma Îslamî ya Îranê nîşan da.
Di beşa dawiyê ya karê pilînomê de, endamên rêberiya Hizbê, li ser pêvajoya pêşveçûna karê komîteya amadekar ya kongireya Şazdemîn a Hizbê, ku ji aliyê berpirsê Komîteya Amadekar ve hate pêşkêşkirin, hatine haydarkirin.
Pilînomê piştî gudarîkirin û biryardanê li ser hemû mijar û basên destûra karê pilînoma Çardemîn, demjimêr 5'ê êvarî ya roja Yekşemî berwarê 13'ê Çiriya Paşîn (23.08.1395) dawî bi karên xwe anî.

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**
**14.11.2016'an a Zayînî**
**24.08.1395'an a Rojî**

## Mistefa Hicrî digel malbatên şehîdên “Rasan”ê kom bû

**Sekreterê giştî ê PDKÎ tevî heyeteke Deftera Siyasî ya PDKÎ, digel malbatên şehîdên “Rasan” a Rojhilata Kurdistanê kom bû.**



Roja Çarşemiyê 17.11.2016’an Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ tevî heyeteke Deftera Siyasî a PDKÎ, digel malbatên şehîdên “Rasan” a Rojhilata Kurdistanê, û komeke têkoşerên vê qonaxê ji xebta û tekoşîna PDKÎ, kom bû.

Di destpêkê de, rêzdar Mistefa Hicrî tevî bixêrhatinkirina ji malbatên şehîdan ji aliyê Deftera Siyasî ya PDKÎ ve, cardin mixabiniya hizbê bo şehîdbûna van hevalan eşkere kir, û qala vê yekê kir ku, pîroziya armancên şehîdan, û pêşwaziya hevalên wan ên serbilind bo berdewamiya xebatê di riya van armancan de, bo me û gelê Kurd û hemû azadîxwazan cihê şanaziyê ye.

Hicrî bas ji vê kir ku ew nirx û buha, bona rizgariya ji destê rejîma dîktator a Komara Îslamî a Îranê ye, bona bidestxistina van armancên buhagiran, xortên Kurd têne çepera hevalên xwe ên şehîd, û bi cangorîtî ve xebata xwe didomînin.

Sekreterê giştî ê PDKÎ herwisa bas ji vê kir ku erk û wezîfeya li ser milê me ye, ku bi her awayekî ku ji destê me tê, em xizmeta we û malbatên we bikin, hûn jî, erkeke neteweyî û niştimanî û neteweyî li ser milên we ye, ku ew jî rêzgirtin e ji armancên hizba we, û parastina buhayên mirovî û pîroz ên şehîdan.
Me ew çavnihêrî ji we heye, her wekî ku heya niha we nîşan daye, hûn bi hizba xwe emegdar bûne, û heya gihîştina bi armancên wê jî, hûnê dirêjîder û alahilgirê rê û rêbaza şehîdên nemir bin, û hûn mînaka mirovên xwedî îrade û kêrhatî ne.
Di dawiyê de, beşdarên civînê tevî spas û pêzanîna ji PDKÎ ku agehdarî malbat û zarokên şehîdan e, berdewambûna li ser xebatê, bona gihîştina bi armancên şehîdan wekî erk û wezîfeya li ser milên xwe dane zanîn.

## “RASAN”ê Meclîsa rêjîmê jî xiste tevgeran

**Piştî daxuyaniyên berdewam ên rayedarên leşkerî û ewlekarî yên rejîma Îranê li hember şoreşa nû ya Rojhilat, vê carê pîlaneke nû ji aliyê Meclîsa rêjîmê ve jî derket holê.**

Piştî çêkirina Firaksiyona Turkzimanan li Meclîsa Şêvra Îslamî ya rejîma Îranê di dema borî de, ku tê de 100 kes bi nav nûnerên herêmên turkakincî beşdar bûn, hewleke din jî di vê pêvajoyê de derketiye holê, ku pêkhatî ye ji çêkirina Firaksiyona Belûç û Kurdan.

Sazkirina Firaksiyona Turkzimanan li Meclîsa ligel nerazîbûn û dijberiya çendîn aliyan rûbirû bû ku ya herî berçav nameya 170 mamostayên zanîngeh û dîrokzanên Îranî ye bo Elî Larîcanî ku di nameya xwe de gotine eva hewildanek e bona parvekirina meclîsê ku encama wê dibe lihev cudabûna nasnameya Îranî. Ev name di demekê de hatiye belavkirin ku berdevkê dewleta Rohanî, Mihemed Baqir Nobext ji Rojnameya Qanûn re gotiye:
“Sazkirina van Firaksiyonane hewildanek e bona ku em bikaribin yekparçeyiya Îranê biparêzin û em piştgiriya wê dikin.” Hinek çalakvanên siyasî jî nerînên cuda ji vê yekê hene. Yek ji wan çalakvanê siyasî yê Ereb li Îranê Yusif Ezîzî Benî Turof e û li ser vê bawerê ye ku ev pirs tenê bona rakişandina bala neteweyên Îranê bo beşdarîkirina di hilbijartinên pêş ên Serokkomariyê ye. Navborî ji Nûçegihaniya DW a Almaniya re gotiye di hilbijartinên sala 1392an de Rohanî karî bi dayîna hinek sozan bala neteweyên Îranê bo aliyê xwe rabikişîne û eva jî hewildanek e di heman pêvajoyê de. Ji aliyekî din ve, çalakvanê siyasî yê Belûç Ebdulsetar Duşkî ji DW re ragihandiye:
“Dewletê çi roleke yekalîker li Sîstan û Belûçistanê nine û ewa ku gotina dawî li van herêman dike, navendên ewlekarî û leşkerî yên rejîmê ne.”

Her di vê derbarê de beşek ji çalakvanên Kurd jî dibêjin, hewildanên sazkirina Firaksiyonên bi vî awayî di pêvajoya heman daxuyaniyên tundajo û tejî tirs û xof ên berpirsên leşkerî û ewlekarî yên rejîmê de ne li hember RASAN û şoreşa nû ya Rojhilata Kurdistanê, ku armanca wan ji vê yekê xebat û hewildan bona rakişandina hêz û potansiyelên nav Kurdistanê û wan herêman e ku neteweyên Îranî tê de niştecih in.

Piştî ragehandina qonaxa nû ya xebatê di Newroza îsal de ji aliyê birêz Mistefa Hicrî Sekreterê Giştî yê PDKÎ, rejîma terorîstî ya Îslamî ya Îranê ketiye xwe, ji xeynî bombebarankirina sînorên Başûr û Rojhilata



Kurdistanê, bi hêceta hebûna binke û baregehên PDKÎ, ji rêyên cur be cur ên dîplomasî, medyayî û leşkerî ve hewl dide li hember vê xebata nû bisekine û çalakiyan bike. Di hember de jî Komîteya navendî ya PDKÎ di civîna xwe ya dawî de ku çend rojan berî niha hat lidarxistin, serbarê berçavgirtina hemû xalên erênî yên “RASAN”ê, bi xurtî li ser berdewamiya “RASAN”ê tekez kir.

**Doma Sergotarê**

şoreşê ye, û li ser piyan sekinîn û birêveçûna şoreşê demê dixwaze, û têçû hewce ye, û mirovên şoreşger dixwaze. Lê dibe ku di çend biyavên sereke de, ew Rasan bibe rasaneke tevalî.
Ew biyav pêk tên ji: Coxrafiya, tex û qatên civakê, aliyên siyasî, şêwazên beşdariya gel.

Her yek ji wan biyavan, pêwîstî bi hûrkirin û nirxandin û verojandin û radaneke zêdetir heye, da ku em bikarin, xalên bihêz û ên lawaz ên xwe di wan beşan de, û şêwaza xistina wan xalên bihêz di pratîkê de bi kar bînin, û piştre jî ji cerbeyan û şaşiyan dersa zêdetir werbigrin.
Şirovekirina hemû wan pirsên girîng, karekî berfireh û tevalî dixwaze, û dîtinên cuda û berhevdanên cuda jê dikevin, û dibe bikin destpêkek bo diyalogeke niştimanî a sertaserî. Jiber ku pirsa serekî, pirsa jiyan û xebatê, û pirsa îro û sibehiya gel e. Dibe di vê verdan û berhevdanê de, dengên gel beşdar bin, û di pratîkê de jî, bi wateya tewaw ya peyvê gel beşdar be.

Em xortên vê neteweyê di vê qonaxa hestiyar de, li pêşberî çend rêbazên dîrokî de ne, û helwesta me ya îro nasnameya me ya sibehiyê diyar dike.
Erka li ser milên me ye, ku em riyên pêşiya xwe nas bikin, û îmkanan bibînin, û hemû gel û xelk, her yek di cihê xwe de, û bi şêwaza xwe, berbe canê dijmin, û bona bidestxistina azadiyê, em li ser piyan bin.

# Îran û Evlehiya Mirovî



Sabir Ebdollahîzad

**Beşa Çaremîn**

Binpêkirina Ewlehiya Hawirdorê* (Jîngehê)

Pêşgotin

Hevdem ligel bidawîhatina Şerê Cîhanê yê Duyemîn, "Hiqûqa Mafên Mirovan ya Navneteweyî" û "Hiqûqa Mirovdostane ya Navneteweyî" an jî bi wateyeke din "Hiqûqa Şer" weke du şaxên girîng yên Hiqûqa Navneteweyî rastî geşedanên berbiçav hatin.

Ev du beşên hiqûqê, bi rêzik û prensîbên nû yên taybet bi demên aşitî û nakokiyan, parastina jîngeh û hawirdorê jî weke erkê serweriyê û yek ji mafên mirovan pênase dikin. Nifşa yekem(Mafên Azadiyê) û duyem(Mafên Wekhevîyê) yê mafên mirovan bi awayeke nerasterast û di çarçoveya "Mafê Jiyanê" de amajê bi girîngiya parastina jîngehê dikin lê yek ji çar hêmanên nifşa sêyem(Mafên Gelan/Mafên Biratiyê), "Mafê Hawirdora Saxlem"e ku bi giştî li ser bandora dualî ya jîngeh û mirov û her wiha pêdiviya parastina hawirdorê disekine. Raporta Geşepêdana Mirov (1994) dema ku amajê bi ewlehiya mirov dike vê yekê berşav digre ku aşitî û ewlehiya navxwe û navnetewî girêdayî hawirdoreke saxlem e. Di sê beşên pêşin yên bi sernavê "Îran û Ewlehiya Mîrov" de "Ewlehiya çandî û Mafê Zimanê Zikmakî","Ewlehiya Siyasî" û "Ewlehiya Şexsî" hatin pêşkêş kirin. Di vê beşê de jî hêmana çarê ya Ewlehiya Mirov bi navê "Ewlehiya Hawirdorê", pênase, çavkanî û binpêkirina mafên ku di hindurê vê hêmanê de cih digrin, ji aliyê rejîma îranê ve dê bê pêşkêş kirin.

Kilîla peyvan: Hiqûqa Navneteweyî, Hiqûqa Mafên Mirovan yê Navneteweyî, Ewlehiya Hawirdorê, Mafê Ewlehiya Saxlem

Pênaseya Ewlehiya Hawirdorê

Di wêjeya hiqûqî de ji bo ewlehiya hawirdorê bi dehan pênaseyên cida



tên pêşkêş kirirn ku hin ji wan bingeha pênaseya xwe dixin ser peyva hawirdorê û yên din berdewamiya jiyana ciwakî ji bo pênaseya ewlehiya hawirdorê esas digrin. Lê ev rastiye nabe tu car bê ji bîr kirin ku hebûna pênaseyên cida, naverok û armancên ewlehiya hawirdorê naguhere. Ji ber ku parastina jîngehê ji bo parastina jiyana mirovahiyê pir girînge.

Mixabin Raporta Geşepêdana Mirov ji bo vê hêmanê jî tu pênaseyan pêşkêş nake, lê hiqûqzanên navneteweyî bi giştî li ser vê xalê tekez dikin ku li nav çûna jîngehê dê bibe sedemê nakokiyên taybet bi çavkaniyên xwezayî. Li ser vê esasê jî mirov dikare wê têgehê weke "çarçûveya ku dewlet bikaribe têde bi awayeke domdar li çavkaniyên xwezayî û hawirdorê mifayê wergire, bêyî ku tu xisar û ziyanê bigehîne hawirdorê û jiyana mirov têxe xetereya li nav çûnê", pênase bike.

Hêmanên Ewlehiya Hawirdorê

Her wekî ku me di beşên din jî amaje pê kir, her yek ji heft hêmanên nav borî di Raporta Geşepêdana Mirov de, ku weke bingehên ewlehiya mirov tên nasîn, hin maf û azadiyan li xwe digrin ku pêwîste ji bo misogerbûna aştî û ewlehiya navxwe û navneteweyî rêz jê bê girtin. Li gor prensîbên girêdayî Mafê Mirovan û Hiqûqa Navnetewî ya Hawirdorê, "Mafê Beşdariya di Biryardana di Derbarê Hawirdorê de", "Mafê Hawirdora ewle", "Mafê Bidestxistina Daneyên di derbarê Hairdorê de", "Mafê Tezmînatên Hawirdorê", "Mafê Ava Saxlem" û "Mafê Hewayê Saxlem", girîngtirînê wan mafane ku di hundirê Ewlehiya Hawirdorê de cih digrin.

Ewlehiya Hawirdorê di Belgnameyên Navnetewî de

Li gor daneyên Hiqûqa Navnetewî ya Hawirdorê, îro rojê mijara parastina jîngehê di naveroka zêdetirî 270'ê peymanên navneteweyî de derbaz dibe ku nêzîk 70'ê ji wan gerdûnî û yên din herêmî ne. Danezana gerdûnî yê Mafên Mirovan (Xala 3), peymana Navnetewî ya mafên Siyasî û medenî(Xala 6) û Peymana Navnetewî ya Mafên Aborî, Civakî û Çandî(Xala 12, benda 2'yê) bi awayeke ne rasterast amajê bi girîngiya parastina jîngehê dikin. Lê Danezana Stockholmê (1972) ku weke maka Hiqûqa Hawirdorê tê binavkirin, bi pêşkêşkirina 26 pirensîbên girêdayî parastina jîngehê û bi taybet di prensîba yekê de, amajê bi bandora dualî ya mafên mirovan û havirdorê dike.

Herwiha Pêşnûmaya Peymana Navnetewî ya mafên Piştgiriyê(1982) aşitî, geşedan, hawirdor û mîrata hevpar ya mirovahiyê weke nirxên nû yên gerdûnî dide zanîn û daxwaz dike ku dewlet wan mafan jî bi fermî nas bikin. Ev belge geşekirina aborî, civakî, çandî û bitaybet hiqûqî girêdayî hawirdoreke guncav dibîne. Her li gor vê peymanê yek ji erkên bingehîn yên dewletan eve ku bi kiryar û çalakiyên xwe jîngehê têk nedin û jiyan û saxlemiya mirov nexin tehlûkeyê.

(Xalên 14 û 15) Herwisa "Peymana Gerdûnî ya Xwezayê" ku sala 1982'yê weke biryara hejmar 37/7 ji aliyê Civata Giştî ya Netewên Yekbûyî ve hat pejirandin, erk û peywirên dewlet û saziyên civaka sivîl yên di derbarê parastina jîngehê rêz dike (Xalên 14 heta 24'ê). "Danezana Rio"(1992) jî li ser vê baweriyê ye ku mirovahî li navenda geşedana mayinde de cih digre û hêjayî jiyaneke saxlem û hewaheng digel jîngehê ye. (Xalên 1 heta 20'ê).

Li asta herêmî jî hin lihevhatin û peyman cih digrin ku girîngiyeke zor diden parastina jîngeh û ewlehiya hawirdorê. Weke mînak "Rêziknameya Afrîkayê ya Mafên Mirov û Gelan"(1981) di xala 24'ê de hawirdoreke saxlem bi mafê gişt gel û netewan dizane û ji bo cara yekem parastina vî mafî weke erkê dewletên endamê peymanê dide nasîn. Ji aliyê din "Protokola pêvek a Peymana Emrîkî ya Mafên Mirovan" (1988) jî di xala 11'ê de, Mafê Hawirdora Saxlem weke mafê gişt takekesên civakê pênase dike û bi erkê dewletên endam dizane ku bi awayeke qanûnî parastina vî mafî bikin û ji bo parastina jîngehê pêngavên pêwîst bavêjin. Hiqûqa Mirovdostane ya Navneteweyî jî girîngiyeke taybet didete mijara parastina hawirdorê. Danezana St. Petersbûrgê (1868), Peymana Çarê ya Laheyê ya di derbarê yasa û kevneşopiyên şerê bejayî(Xala 22), rêzikêm Laheyê(1907, xala 23), Protokola pêvek ya peymanên Jenevê (1977) û peymana ENMOD(1977) jî bi awayeke rasterast hewla parastina jîngehê didin.

**Ewlehiya Hawirdorê û Hiqûqa navxwe**

Weke her car, dema ku mirov dixwaze di nav gola genî ya hiqûqa navxwe de li şopa hêmanên girêdayê hiqûqa navneteweyî bigere rastî astengan tê. Ji ber ku hiqûqa navxwe çavkaniya xwe li tekstên dînî digre tu car nikare xwe li gor prensîbên navneteweyî pêş bixe. Berê hatine ser kara rejîma axûndî jî tu yasayek girîng di derbarê parastina jîngehê nehatibû pejirandin. Ji bilî "qanûna avakirina konseya bilind ya bajêrsazî û avasaziyê", ku armanca xwe avakirina hawirdoreke gûncav ji bo hevwelatiyan pênase dikir(xala 1'ê) lê bê encam ma.

Tê gotin ku xala 50'yê ya makezagona komara îslamî çavkaniya mafê hawirdora saxlem û ewlehiya hawir

**Dom R:6**

# Fîlê Emerîkî bi ser ket tirs bi Hirçê Rûsî ket!



**Lazgîn derûnî**




Wek ku em dizanin du partiyên sereke di Emrîka de hene, yek Partiya Demokrat û ya din Partiya Komarî, ev herdu partiyên han hevrikiyeke dijwar di navbera wan de ji bo desthilatê heye, û şensê wan ne dûrî hev e.

Di vê derbarê de, carna Demokrat bi ser dikevin, û carna Cimhûrî bi ser dikevin, lê cudahiyek xuyayî di navbera her du partiyan de heye, di siyaseta ji derve de, dibêjin Partiya Demokrat ya Kevokan e (aştiyane), û dibêjin Partiya Cimhûrî ya Bazan e (cengane

Piştî şerê cîhanî yê duyemîn du hevbendî yên sereke pêk hatin, yek hevbendiya Nato bi seroktiya Emerîka ya din hevbendiya Warşo bi serokatiya Yekîtiya Sovyetê, û herdu hevbendî ketine hevrikiyekê, ku jê re digotin şerê sar, wî şerî berdewam kir, heta sala 1985'an, dema serokatiya Ronald Rêgin yê ji aliyê Partiya Cimhûrî ve, ku zexteke mezin li hevbendiya Warşo kir, û bi teybetî li Yekîtiya Sovyetê di dema Gorbaçov de, û ew di sala 1991'an de hete rûxandin, û rola wê lawaz kir di cîhanê de, û şerê sar bi dawî bû, ku Emerîka bû hêz û aliyê yekemîn di cîhanê de,vê yekê gellek pirsgirêk di cîhanê de guhertin û bi teybetî di Rojhilata Navîn de, yek ji wan derxistina Sedam ji Kuweytê di dema Corc Boş yê bav de, û dorpêçkirina Rijîma Be's, lê piştî ku Bîl Kilînton yê Demokrat hat, dîsa sistayî di vê derbarê de kir heta dema Corc Boş yê kur yê Cimhûrî hat, û biryara rûxandina rijîma Sedam da, û ew ji kokê birî bê ku Rûsya karibe li hember raweste, û pirojeya Rojhilata Navîn ya nû danî ,lê mixabin piştî ku dîsa partiya Demokrat bi ser ket, û Barak Obama bû serokê Emerîka dîsa sistayî kete siyaseta Emerîka ya ji derve de, û hêza xwe ji Îraqê vekişand, û destê El Qa'îde lê berda.

Piştî bihara Erebî dest pê kir, Emerîka bi rola xwe wek dewletek bihêz nerabû, ji vê yekê hin bi hin Rûsiya rola xwe xurt kir, û bi teybetî di nava Sûrî de, û bû weke dagîrker û bi top û firokê xwe gelê Sûrî dikuje, ev bû şeş salê temam, bê ku Emerîka karibe li hemberî wê raweste, ew Emerîka ku hêza yekemîn di cîhanê de çawa îro nikariye biryareke xurt û hişk di derbarê rijîmeke wek ya Sûrî de bistîne.

Îro piştî ku dîsa Partiya Cimhûrî bi serket, û Tiramp bû serokê Emerîka, tirs bi Rûsya ket û wê sed hesabî bike, û wê gellek heseb û pirsgirêk werin guhertin, bi teybetî di Rojhilata Navîn û Sûrya û Îraqê, û gellek dewletên din de, wek Îran û Tirkiye û hin dewletên Erebî yên ku piştgirtiya gurûpên terorîst dikin .

---

**Doma R:5**

dorê ye lê ev xal parastina wan mafan weke erkê giştî yê takên civaka dizane û tu peywirekê ji bo serwerî an jî bi wateyeke din desthilatê berçav nagire. Herwiha li gor piraniya şiroveyên hiqûqî, di vê xalê de bi tu awayî mafê hawirdora saxlem bi wateya hiqûqa navnetewî nehatiye misogerkirin û ji bo rejîmê pêdiviyên û berjewendiyên aborî yên li jîngehê tên girtin li vê çendê girîngtire ku weke mafek ji mafên hevwelatiyan bê pênase kirin.

**Binpêkirina Ewlehiya Hawirdorê ji aliyê Rejîma Îranê ve**

Bê şik encama nabûna zagon an jî yasayekê ku jîngehê bi awateke fermî weke maf bide nasîn û ji bo parastina vî mafî garantiyên guncav pêşkêş bike, dê bibe rêvekerê kiryar û çalakiyên ku tenê berjewendiyên desthelatê berçav digrin û hawirdorê dikin meydana rikberiyên aborî û Siyasî. Ji destpêka hatine ser kara rejîma axûndî heya îro, linavbirina daristanên bakûrê îran û Rojhilatê Kurdistanê roj bi roj zêdetir bûye.

Ji aliyê din hişkkirina bi mebest a ger û gûl û zenekên ku weke mîratên netewî tên nasîn, ber lê negirtina nêçîra bêsinor ya ajelên kivî, xemsariya li hember parastina ajelên di xetereyê de, cotkarî û avdaniye bê pergal û trajediyên weke "Kanî Bel" û "Sûle dûkel"ê, bi giştî çavkaniyê xwe ji armancên nihênî yên desthilatê digrin. Ev jî di demekê de ku li gor raporên navnetewî yên girêdayî ewlehiya hawirdorê, heya dawiya 2050'ê xezîneya ava 12 parêzgehên îranê dê bi dawî bê û dê li kêlega ewlehiya hawirdorê, ewlehiya xwarinê jî bikewe xetereyê.

Her disa li gor wan rapora îran li gor pîvanên taybet bi saxlemiya hawirdorê di nawa 146 welatan de li rêza 132"yê de cih digre û du ji sêya xaka îranê dê bibe çûl û ev pirsgirêk li kêlega xirabbûna rewşa aborî ya piraniya rûniştîvanên îranê dê bibe sebebê nakokiyên dijwar di navxweyê îranê de.

Xala ku di derbarê rojhilatê Kurdistanê de pir girînge dewlemendiya çavkaniyên avê ye ku rejîm dixwaze ji bo zengînkirina aboriya parêzgehên weke Zencan, Qezvîn, Isfehan, Fars û hwd. Ev jî di demekê bikar bîne. Ev kirara şaş jî weke gişt çalakiyên neyasayî ku li hemberê rûniştîwanên Rojhilatê Kurdistanê tê pêkanîn, nayê qebûl kirin û bê şik kiryarên bi wî avayî di paşerojê de dê bibin jêdera şer û pevçûnên xurt xwedê çavkanî û bikarîneran.

**Encam**

Her wekî ku hate amaje pê kirin, ewlehiya hawirdorê yek ji hêmanên ewlehiya mirov e ku parastina jingehê esas digre û jiyana nifşa mirov girêdayî parastin û berdewamiya jiyana xwezayî dibîne. Ewlehiya hawirdorê girêdayî cîbicîkirina gişt wan mafane ku li jor hatin rêz kirin. Mixabin her wekî ku li yasa û kiryarên rejîmê tê fêhm kirin, Desthilata axûndî tu bihayekê nade hawirdorê û tu car parastina jîngehê weke mafê hevwelatiyan û peywira xwe nanase. Bê şik Têkdana jîngehê, erdnîgariya xwezayî û mirovî diguhere û dibe bingeha nakokiyan û gefa li ser aştî û ewlehiya navnetewî.

Pîlan û siyasetên şaş yên rejîmê bandoreke pir xirab li ser jiyana gelên îranê dike û bûye sebeb ku pisporên hiqûqa navnetewî û karnasên jîngeh û jîngeparêz hişyariya mezinbûna pirsgirêka jîngehê bidene desthelatê.

Berdewamiya wan siyasetên şaş dê bibe sedema dubarebûna krîzên weke qeyrana hişkesaliya li Somalî û şerê dijwar li Sûriyê ku çavkaniya herdukan jî vedigere binpêkirina Ewlehiya Hawirdorê û bi taybetî Mafê Hawirdora Saxlem.

* Lêkoler di vê gotarê de peyvên Hawirdor û Jîngehê bi awayekê hevwatê bikar tîne.

## Nerîna Lîderan



**Barzanî:** "Pêşmerge ji herêmên rizgarkirî navekêşe".



**Ehmed Turk:** "Emê ber xwe bidin".



**Mihemed Hacî Mehmûd:** "Pêşmerge çeperên xwe qahîmtir dike, û wê bimîne".



**Obama:** "Ez nîgeran im ku Tramp bû serkomar".

# Xwendin û şiroveya "Rasan"ê, di gefên Spaha Pasdaran bo ser Hikûmeta Herêma Kurdistanê de



**Elborz Rû'înten**

Gefxwarinên Spaha Pasdaran, îsal ketiye qonaxeke nû de, jiber ku rengê gefxwarinên îsal digel salên berê pir cuda ye, û serbarê nîşandana tirsa rejîmê, pîlanên rejîmê jî eşkere dike.

-Çima gerek Spaha Pasdaran weha bi eşkere li dijî Herêma Kurdistanê û hêzên Kurdistana Rojhilat û bitaybetî

rêberiya "Rasan"ê, wate PDKÎ ku bi hizbekî "Hiloşandî" nav dibe, gefan bixwe?
-Çima gefxwarinên Spahê rasterast ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê û Serokatiya Herêmê ye, di demekî de ku niha serdemê yasa û bingehên dîplomasiyê ne?
-Pîlana veşartî ya wan gefxwarinan çi ne?

Bersivdana van pirsyaran, wêneyek zelal ji siyasetên Spaha Pasdaran li hemberî gelê Kurd nîşan dide. Bersiva pirsyara yekemîn vedigere bo serkevtina "Rasan"ê di gelale û cîbicîkirinê de. Jiber ku gefxwarinên Spaha Terorîst ya Pasdaran, weke nawenda herî sereke û girîng bona parastina rejîmê, vedigere ser nîgeranî ji tehlûkeya "Rasan"ê bo ser rejîma Îranê, hekî wisa nebe êdî gefxwarina hêzekî weke Spahê ji hêzeke din (PDKÎ) ku bi xwe îd'iaya hiloşîna vê hizbê dike, wateya xwe ji dest dide. Lê eva ku Spaha Pasdaran neçar maye bi vî rengî gefan bixwe, nîşaneya meznahî û bandora "Rasan"ê ducarî dike, ew jî ji zimanê dujmin ve. Lewra girîngî û hewcehiya piştevaniya giştî ya gelê Kurd ji "Rasan"ê careke din bo hemûyan derdikeve, jiber ku dujmin jî be hemû awayekî dijatiya "Rasan"ê dike û gerek Kurd jî bi hemû awayekî piştevaniyê jê bike.

Bersiva pirsyara Duyemîn ji hêza Spaha Pasdaran ji destêverdanên di karûbarên welatên Herêmê de çavkanî digire. Jiber ku gefxwarinên ji damezraweyekî yasayî ku têkiliyên dîplomatîk bi Îranê re hene, ew jî gefên weke êrîşa leşkirî û dujminatîkirin



Herêma Kurdistanê, diselimîne ku rejîm bê hêvî bûye, lewra dixwaze bi awayekî eşkere zext û givaşê bixe ser Hikûmeta herêma Kurdistanê, da ku ew jî bi her wayekî be, rêberiya rasanê ji berdewamiya pilanên xwe poşman bike.
Xala balkêş eva ye ku Spaha Pasdaran şêwe û cura gefên xwe jî tîne ziman. Gefên weke êrîşa mûşek û êrîşa Dewleta Nawendî ya Îraqê bo ser Herêma Kurdistanê û tenanet veqetandina beşek ji axa Herêma Kurdistanê û piştevaniya ji hinek aliyên Kurdi ji rêya alîgirên xwe di welatên din de bona dijatîkirina Herêma Kurdistanê û serkirdatiya siyasî ya Kurdistana Başûr bi eşkere berçav dikevin, eva jî bi vê wateyê tê ku pêşveçûna "Rasan"ê bi qasekî zext û givaş xistiye ser Spaha Pasdaran ku, rasterast gefan ji Herêma Kurdistanê dixon.
Bersiva pirsyara Sêyemîn mirov dikare di nava wav peyvan de peyda bike, ku di kakila gefxwarinan de tînin ziman, di despêkê de ku serdar "Selamî" ji tirîbûna fermî ya Komara îslamî, wate nimêja Înê de, bas ji êrîşa mûşekî û bejahî kir bo nawendên şoreşê, ku dikevin derveyî sînorên Îranê, nîşan dide ku tirs ji bersiva Hizba Demokrata Kurdistana Îranê di hundir Kurdistana Rojhilat de heye, bi awayekî ku be êdî ditirse rewş ji kontrolê derkeve.

Gefa duyemîn a Sefewî yê şêvirmendê Xamineyî bo karûbarên leşkirî derheq bihevre girêdana Kurdistanên Başûr û Rojava bû. Gellek şirovekarên siyasî û rojnamevanî li ser vê baweriyê ne ku, merema rejîma Îranê jî avakirina hikûmetekê ye li Kurdistana Başûr ku, nêzîk be ji "PKK"ê û bikare ji rêya nêzîkatiya ji deshilatdariya Kurdistana Rojava, bikarin hevdu bigirin û "Hîlal a Şî'e" ya Îranê bigehînin encamê.

Lê eva ku min ji wan gefxwarinan fam kir bi vî rengî nine, jiber ku şêvirmendê Elî Xamineyî bi başî dizane ku, Partî û Serokatiya herêmê, bi sedema siyasetên xwe, nikarin di vê hevkşeyê de cih bigirin, lewra merem ji wan gefxwarinan, bihevregirêdana Şingalê ye bi Kurdistana Rojava ve, ku ji rûyê coxrafî ve gellek bi qazancê Îranê ye. Lewra her piştî wan gefxwarinan bû ku Turkiyê jî hest bi pîlana rejîmê kir û bi fermî rage-

hand ku, em rê nadin qendîleke din li Şingalê ava bibe.

Di gefa xwe ya herî dawiyê de ku dîsan her Sefewî xwar, bas ji vê yekê dike ku Kurdistana Başûr nikare pêngavan ber bi xweseriyê ve avêje, jiber ku wî çaxî tenê esman ji wan re dimîne, eva jî bi vê wateyê tê ku me herêma Kurdistanê bi tewahî dorpêç û kontrol kiriye û tenê rêya esmanî digîje Kurdistana Başûr.

Hekî em bên û bas ji parevbûna hêzên dostê Îranê bikin, renge eva rast be, jiber ku beşek berçav ji vê dorpêçê, ji aliyê hêzên Kurdî ve hatine encam dan, ew hêzên ku Îran wan bi beşek ji xwe dizane, lewra tenê rêya esmanî ji Kurdistana Başûr re hêlaye. Eva jî vê yekî îsbat dike ku pîlana rejîma Îranê bona lêdana derbê û anîna zext û givaşê bo ser Hikûmeta Herêma Kurdistanê, ji rêya hêzên Kurdî ve tê cîbicîkirin, û hekî bêt û ew hêzên Kurdi bona parstina berjewendiyên netewî guherînkariyê bi siyasetên xwe de pêk bînin, pîlana rejîmê ser nagire û "Rasn" jî gelle hêsantir û bêtir wê biser keve, û Kurd û cîhan jî ji destê dujmnek dirinde û hov rizgar be.
Di dawiyê de eva ku ji gefxwarinên Spaha Pasdaran derdikeve, di despêkê de ji tirsa "Rasan"ê ye, û piştre ji dîtina serkevtina Rasan"ê ye û di dawiyê de xûyakirin û eşkerebûna pîlanên wan in li dijî gelê Kurd û "Rasan"ê. Lewra eva nîşa dide û diselimîne ku erkê ser milê "Rasan"ê çiqas giran e, û serbarê vê qursiyê jî kariye ku bi vê qasê bihêz be ku dujmin neçar bike hemû hewlên xwe bide û hevdem hêviyên me bona rizgarî û serbestiyê jî du hemberî bike.

## Şêwe Qehreman: “li “Qislan” a ser bi Kurdistana Başûr, Dr. Qasimlo serdana mala me kir, wê rojê min bo yekemîn car rêberê navdar yê gelê Kurd Dr. Qasimlo ji nêzîk ve dît”.

**H:Arif Vêlzî**





Siyaseta paqij ku li ser bingeha parastina berjewendiyên netewî bê darêtin, wê bala her kesek azadîxwaz û demokrat bo aliyê xwe bikişîne, eva ku em bi dirêjahiya pitir ji 70 sala ne ji PDKÎ dibînin û



şanaziyê pêve dikin.
Bê guman siyaseta paqij û li ser bingeha parastina berjewendiyên netewî ya PDKÎ'ê, ne tenê li Kurdistana Rojhilat, belkî li parên din ên Kurdistanê jî, evîndarên xwe yên azadîxwaz û demokrat hene, ku serbarê hebûna partiyên curbicur ên Kurdistana xwe, jiyan û xebata di nava Hizba Demokrat de hilbijartine û bi şanazî ve ji derbazbûya xwe dinêrin.
Şêwe Qehreman jî yek ji hemwelatiyên Kurdistana Başûr e ku, serbarê hebûna gellek partiyên şoreşvan û azadîxwaz li Kurdistana Başûr, piraniya temenê xwe di nava refên kadr û pêşmerge û malbatên Hizba Demokrat de derbaz kiriye û rêbaza Hizba Demokrata Kurdistanê bi rêbaza Kurdatiyê dide zanîn.

Şêwe “Qadirî” keça Qehreman, sala 1962'an (1341) li gundê “Hawar” a ser bi bajarê Helebçê, di malbateke nîştimanperwer de hatiye dinê.
Şêwe Qehreman derheq bi nasyariya xwe tevî PDKÎ, ji rojnameya Agirî re weha dibêje: “Sala 1982'an (1361) ez ji rêya Şehîd Mehmûd Begê Kilaşî ve digel tevgera rizgarîxwaziya Kurdistana Rojhilat bi rêberiya Hizba Demokrata Kurdistana Îranê nasyar derketim”.
Şêwe Qehreman herwûsa tevlîbûna xwe bi refên Hizba Demokrata Kurdistanê ve weha bas dike û dibêje: “Sala 1988'an (1367) min digel birêz Mihemed Nezîf Qadirî ku niha Endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ ye, jiyana hevpar ava kir û bi wî awayî ez rasterast tevlî jiyan û xebata siyasî di nava refên kadr û pêşmerge û malbatên PDKÎ bûm, û ji wî çaxî pêve heya niha, xwediyê jiyaneke pir ji serfirazî û welatparêzî bûme ku hertim cihê şanaziya min e”.
Şêwe Qehreman derheq berhema jiyana xwe ya hevpar dibêje ku: “Berhema jiyana min digel Mihemed Nezif Qadirî 3 keç û Kurek in. Zaroka me ya yekemîn Jiyar e ku Zankoya Pizişkî ya Herwlêrê bidawî aniye û niha li nexweşxaneya Raperîn a bajarê Hewlêrê pizişk e. Zaroka Duyemîn Tewar e ku Endaziyariya Petrolê li Hewlêrê bidawî aniye û li bajarê Hewlêrê dirûnê. Zarokê me yê Sêyemîn kurê me yê taqane Hejîr e ku niha mijûlî xwendina sala Çaremîn a taya “Busines”ê li zankoya Amerîkî li bajarê Silêmaniyê ye, û herweha zaroka me ya Çaremîn jî keça me yê biçûk Hêlên e ku niha sala Pêncem a qonaxa amadeyî li bajarê Koyê dixwîne”.



Şêwe Qehreman roja herî xweş a jiyana xwe ya di nava şoreşê de weha tîne ziman: “Du heftî bûn bi ser pêkanîna jiyana me ya hevpar de derbaz dibûn, mala me û bi giştî hêzên Başûrê Kurdistana Rojhilat, li “Qislan” a ser bi Kurdistana Başûr bûn, Dr. Qasimlo serdana mala me kir, wê rojê min bo yekemîn car rêberê navdar yê gelê Kurd Dr. Qasimlo ji nêzîk ve dît, birastî eva roja herî xweş a jiyana min bûye heya niha, û hertim tê bîra min”.

Li hember de Şêwe roja herî nexweş a jiyana xwe weha tîne ziman: “Mixabin gellek bi ser serdana Dr.Qasimlo bo mala me re derbaz nebibû ku, nûçeya teror û şehîdkirina Dr.Qasimlo li Qislanê belav bû, bihîstina nûçeya şehîdketina Qasimloyê navdar û nemir, bo min pir zehmet û bijan bû, û ez gellek aciz kirim, ew roj, roja herî nexweş a jiyana min bûye heya niha”.
Şêwe Qehreman piştî bi salan jiyana di nava refên pêşmergên PDKÎ, çavnihêriya xwe ji partiya xwe weha tîne ziman û dibêje ku: “Çavnihêriya min ji Partiya min eva ye ku, rêz ji wan kesan bê girtin ku xizmeta armancên şoreşa Kurd li Rojhilat û Kurdatiyê bi giştî kirine û hevdem xebata xwe heya gehîştin bi armancên şehîdan berdewam bike”.
Şêwe Qehreman di dawiyê de rû li jin û keç û dayîkên Kurdistanê dike û bi vê gotinê dawiyê bi hevpeyvîna xwe tîne: “Daxwaza min ji hemû jin û keç û dayîk û bi giştî xortên welatparêz eva ye ku, rê û rêbaza Kurdayetî û PDKÎ bigirine pêşiya xwe, û di çeperên berxwedan û xizmeta vê partiya xebatkar de, xizmeta gel û nîştimana xwe bikin, da ku pêşerojeke geş ji jiyana siyasî û civakî bo xwe û malbatên xwe berhev bikin”.

# Pênc hevwelatiyên Kurd di girtîgeha Urmiyê de hatin bidarvekirin

**Bi amadebûna berpirsyarên emniyetî-qezayî ên hikûmeta Îslamî ya Îranê, hukmê îdama 5 girtiyên Kurd di girtîgeha Urmiyê de hate cîbicîkirin.**

Li gora rapora Ajansa Nûçegihaniya Kurdpa, şefeqa îro 24'ê Xezelwerê, di girtîgeha "Derya" ya Urmiyê de, hukmê îdama pênc girtiyên Kurd hate cîbicîkirin.
Nasnameya wan pênc kesan weha hatiye ragehandin: Kerem Qulîzade, Mehkûm Îjek kurê Kazim, Arif Îsma'îlî, Fayiq Abidî û Cewad Esxerî.
Termê wan îdamkiriyan, niha radestî malbatên wan hatine kirin.
Ew pênc girtiyên Kurd ji aliyê dezgeha dadweriya hikûmeta Îranê ve, bi qaçaxa madeyên muxedir hatibûn tohmetbarkirin.
Nûçegihanê "Kurdpa"yê ragehandiye ku her pênc girtiyên îdamkirî, xelkê Urmiyê û gundên derdorê bûne.
Wan girtiyan bo cara dawiyê, di destpêka vê heftiyê de, malbatên xwe dîtibûn.
Serbarê dijberiya tund ya berevankarên mafê mirovan û nawendên navneteweyî, hikûmeta Îslamiya Îranê, berdewam e li ser îdama girtiyan.
Heya amadekirina vê nûçeyê, ragehandinên fermî ên hikûmeta Îranê tu raporek li ser piştrastkirin yan jî retkirina îdamên îro belav nekirine.
Nîva îdaman di Îranê de, di ragehandinên giştî de nahêne belavkirin, ku wekî "îdamên veşartî" têne naskirin.



# Wezîrê Tendurustiyê: Yek li ser pêncê a mewadên xwarinê ên sunetî ne paqij in

**Wezîrê Tendurustiyê ê rejîma Îranê ji rewşa mewadên xwarinê nerazî ye, û ji asta silametiya malbatên Îranî nîgeran e.**



Li gora nûçegihaniyan, Wezîrê Tendurustiya rejîma Îranê ragehandiye ku îmkanatên hilsengandina çawanî û kovalîteya mewadên xwarinê di asteke baş de nîne.

Hesen Haşimî Wezîrê Tendurustiya rejîma Îranê, di rêûresma destpêkirina pirojeya neteweyî ya nirxandina kovalîteya xwarinê ragehand ku hekî pirsa "bercam"ê bi başî bihê cîbicîkirin, emê bikarin dezgehên nû ên nirxandina asta nepaqijiya mewadên xwarinê ji xwe re bikirin.

Navbirî piştre bas ji erk û wezîfeya hikûmetê kir û got ku eva erka li ser milê hikûmet, dewlet û meclis û dezgeha qezayî ye ku bi ser kovalîteya mewadên xwarinê de çavdêriyeke baş bikin, û berpirsayetiya xwe bi cih bînin.

Haşimî Wezîrê Tendurustiya rejîma Îranê, herwisa bas ji vê dike ku di dema çavdêrîkirinê de, %17 ji mewadên xwarinê ên sen'etî têne retkirin, û di nava %20 ji wan mewadên xwarinê ên sunetî de saxtekarî heye.

Salekê berî niha eşkere bû ku ew ablîmoyên ku ketibûn nava bazarê de, tezwîr bûn, û berpirsyarên pêwendîdar ragehandin ku heya dilopek avlîmoya xwezayî jî di nav de nebûye.

Her di vê derheqê de, sekreterê sendîkaya pîşesaziya konsêrwan, ragehandibû ku: "Ew ablîmoyên ku niha em bi kar tînin, %99 ji wan tezwîr û sexte ne, û ablîmoya xwezayî di nava bazarê de nahê dîtin".

Li gora gotina van berpirsyaran, her 17 karxaneyên ku ew ablîmo çê kirine, mohra standard li ser wan hebûye, û hinek ji wan şîrketên xwedî sabiqe ne.

Bi vî awayî hekî Wezîrê Tendurustiyê bixwaze li derheq paqijnebûna mewadên xwarinê rastiyan eşkere bike, tenê wê demê dikare ku ew îmkanatên pêwîst ên nirxandina asta paqijiya mewadên xwarinê bigihîjin destên wan.

# %14 ji mu'itadan 15-19 salî ne

**Hemîd Siramî şêvirmendê sekreterê giştî ê Nawenda Xebata li Dijî Madeyê Hişber ragehand, ku îtiyad metirsiyeke cidî ye li ser jiyana ciwan û nûciwanan.**



Li gora nûçegihaniyan, Hemîd Siramî şêvirmendê sekreterê giştî ê Nawenda Xebata li Dijî MadeyêHişber di gotûbêja bi "ÎSNA"yê re ragehandiye, ku %58 ji mu'tadan, temenê wan di bin 34 saliyê, û %14 ji wan jî, di navbera 15-19 saliyê de ne, ku ew yek tê vê wateyê, ku nivşa ciwanan û nûciwanan bi riya madeyên hişber ve têne komkujkirin.

Hemîd Siramî radigehîne ku nebûna zanyariyan li ser encamên bikaranîna mewada muxedir, û strêss, bawer bi xwe nebû, û xemokî ji sedemên rûkirina xelkê li mewada muxedir e.
Navbirî piştre bas ji vê dike, ku lêkolîn nîşan didin, ku %55 ji dê û bavan, piştî 3-4 salan ku zarokên wan mewada muxedir bi kar tînin, pê dihesin, ku zarokên wan bûne mu'itad.

Nawendên berevankar ê mafê mirovan û gellek ji çalakên siyasî bi anîna belgeyan diselimînin ku tawanbarê sereke di warê tûşbûna xelkê bi madeyên hişber deshilatdarên rejîmê bixwe ne.
Li gora gotina wan, deshilatdarên rejîmê bi awayekî pilandarêtî, hewla avakirina civakek nexweş, û bê bandor dikin, û anîna madeyên hişber bo nav welat û belavkirina wê di nava ciwanan de, di çarçoveya vê pilan û siyaseta wan ya dijîgelî de ye.

## Heyeta PDKÎ di korra nûserên Kurdistana Rojava de pişikdarî kir

**Heyeteke Hizba Demokrata Kurdistana Îranê, di korra nivîskar û torevanên Kurdistana Rojava de pişikdarî kir, û digel çendîn kesatiyên edebî û siyasî jî civiya.**



Êvariya roja Pêncşemî berwarê 17'ê Çiriya Paşîn a 2016'an, heyeteke Hizba Demokrata Kurdistanê li bajarê Hewlêrê, pişikdarî di korra edebî ya Yekîtiya Nivîskarên Kurdistana Rojava de kir.

Di vê civînê de Mihemedsalih Qadirî, endamê Komîteya Nawendî ya Hizba Demokrat û berpirsyarê Deftera Nûneratiya Hizba Demokrat li Hewlêrê, bi hevaletiya Şerîf Fellah, helbestvan û nivîskarê Kurdistana Rojhilat, pişikdarî di vê korra edebî ya li jêr navê "Hizra netewî di helbesta kilasîk a Kurdî de" kir, ku ji aliyê Yekîtiya Nivîskarên Kurdistana Rojava ve hatibû lidarxistin. Di vê korrê de ku li "hotêl Kapîtal" pêk hatibû, hejmarek berçav ji kesatiyên siyasî ên Kurdistana Rojava û Başûr pişikdar bûn.

Ev korr ku taybet bû bi şiroveya hizra netewî di helbestên her çar helbestvanên Kurd bi navên "Emerê Le'lê, Tîrêj, Cegerxwîn û Melayê Cizrî", ji aliyê Dr. Şewket Sindî, Mihemmed Hemo, Xalîd Cemîl û Besam Mistefa ve hatiye birêvebirin, û her yek ji van kesatiyan tekezî kirine ser hizra netewî û nîştimanî di helbesta wan çar helbestvanan de, û cîhanbîniya wan helbestvanan xistine berbas.

Di vê korrê de hunermendê genc "Riyad Osman", bi deng û lêxistina muzîkê bi tenê, berhemek pêşkêş kir, ku helbestên wan 4 helbestvanan li xwe girtibû.
Di vê korrê de, heyeta PDKÎ digel hejmarek ji nivîskar, torevan, siyasetvan û kesatiyên Kurdistana Rojava jî çavpêketin pêk anîn.

## 16.min salvegera koça dawiyê a Ehmed Kaya

**Ehmed Kaya di sala 1956'an de li Bakurê Kurdistanê li Malatyayê ji dayîk bûbû.**



Ew bi muzîk û stranên xwe gellekî nêzîkî xelkê bû, û xwediyê stayleke sebest û protest bû.
Roja 10'ê sibatê 1999'an Ehmed Kaya li Tirkiyê weke baştirîn hunermendê salê bûbû mêhvanê galayeke rojnamevanan û wê xelata 'Serkeftîtirîn hunermendê welêt' werbigirta.
Di dema wergirtina xelatê de, ew çû ser sehnê û got ku ew bi eslê xwe kurd e û ewê di albuma xwe ya di dorê de straneke bi kurdî bêje.
Beşekç mezin ji xelkê yên di salonê de, êrîşî wî kirin û gotinên xirab jêre gotin, hinekan kêr û kevçî jî avêtine rûyê wî. Di nava wan de hunermemdên Kurd jî hebûn.

Piştî çend rojan doz li dijî Ehmed Kaya hate vekirin, û ji ber axaftinên wî 12 sal cezayê zîndanê jê re hat xwestin. Neçar ma here derve, li Parîsê jiyana xwe ya mayî derbas kir, rojên wî yên dawiyê gellekî nexweş bûn.
Wî roja 16.11.2000'î li Parîsê jiyana xwe ji dest da, û niha gorra wî li goristana navdaran li Parîsê li Pêrlaşêzê ye.

## Hejar Duhokî berê xwe daye sînemayê

**Stranbêj Hejar Duhokî dibêje, ji ber ku rewşa stran û muzîka kurdî ne baş e, wî berê xwe daye sînemayê.**

Hejar Duhokî ku li Swîdê rûdine, got:"Hekî ji ber rewşa niha ya Kurdistanê nikarim stranan bêjim, dikarim bi derhênan û wênegirtinê karên xwe berdewam bikim."



Stranbêjê Kurd diyar kir ku wî kurtefîlmek bi navê "A Stumble in the Woodis", li gel çend aktorên Kurd û Swîdî amade kiriye.

Ew niha bi awayekî akademîk û zanistî di warê sînemayê de kar dike, û di dibistanekî sînemayê yê bi navê "Norrköping"a Swîdê de dixwîne.

Bi gotina wî, wî filma xwe nîşanî mamosta û pisporên vê dibistanê daye, û gellek bi dilê wan bûye, lewma dê karê xwe yê sînemayê berdewam bike. Rudaw

## Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Zanebûn gencîneyeke ku bi paş ve nayê stendin e.
**Menandes**

Ma hûn dizanin bavên herî nebaş kî ne? Ewên ku kirinên xwe yên xortaniyê ji bîr kirine.
**Diderot**

Bavek beramberî sed mamostan e.
**George Herbert**

Yên ku em ji wan hez dikin, gava me dixapînin em wan efû dikin, lê yên ku hindiktir bêne efûkirin ewin.
**Bismarc**

Efûkirina dijminekî, ji efûkirina dostekî hêsantir e.
**Dorothee Deluzy**

Riya parastina aştiyê ya herî baş, ji şer re amadebûne.
**Washington**

Aştiya herî nebaş jî ji şerê biheq çêtir e.
**Cicero**

Ji berdêla îdarekirina hukûmeteke bêî rojname, ez îdarekirina rojnameyeke bêî hukûmet tercîh dikim.
**Jefferson**

Sê rojname min ji sed alan bêtir ditirsînin.
**Napoleon**

Di jiyanê de bidestxistina serketina herî mezin, têgihîştina çend rastiyan û jiholêrakirina çend şaşiyan e.
**Fredrickê Mezin**

# Hizra Neteweyî Di GotaraMelayê Cizîrî de (1570-1640z)



Beşa 1

Xalid Cemîl Mihemed

Di sedsala 16’an de, ku sedsala jidayikbûna Mela Ehmedê Cizîrî bû (1570-1640z), şer û pevçûnên Osmanî û Sefewiyan li ser qada Kurdistanê dibûn. Kurdan ji ber vê yekê, ziyanên mezin dîtin. Di encamê de, hesta neteweyî li cem hin kesên kurdperwer gurr bû.

Weke karvedanekê ji Cizîrî jî, wî dest bi pesindana Mîrê Cizîrê yê serdema xwe kir, ku ew jî Mîr Şerefxanê Azîzî bû. Karvedana Cizîrî bû peyameke neteweyî. Hêvî û arezûya wî jî ew bû ku desthilateke Kurdî ya berfireh û xurt hebe, lê bi serkêşî û serokatiya Mîrê Cizîra Botan Şerefxanê Azîzî be.

Melayê Cizîrî di nav helbestên xwe de hin nîşanên hizra neteweyî peyda kirin. Lê ev hizr di helbestên Melê de, ne gelekî diyar û berçav bûn, ne jî bi şêweyekî yekser yan bi diruşm û siloganan hatine bicihkirin. Ev jî vedigere wê yekê ku bêhtir guhdana vî helbestvanî bi asta sûfîzmî hebû, lê her di nav rêzên gotara sûfîzmî de, nîşan û hêmayên guhdana wî bi hestên neteweyî hebûn. Ev nîşan û hêma hişyariya Cizîrî vediguhêzin, ku ew ji bîr û baweriyên neteweyî, ne dûr bû, lê belê wî ev bîr û bawerî bi awayekî nihên di nav derbirrîn û peyvên xwe de peyda kirin.

Ji destpêka sedsala 16em ve, mîrnişîniyên Kurdan ketin bin desthilata sultanên Tirk û şahên Farisan. Hingê, hesta olî di ser hesta neteweyî re dihate girtin. Lê ev yek nebû rêgir li ber dahênan û ristina helbestan bi Zimanê Kurdî, ku Cizîrî alaya wê hilda û pesnê xwe pê da. Ne tenê xwe ji helbestvanên Tirk û Farisan bilindtir dît, ku xwe weke mîrê peyvê binav kir, lê belê xwe di ser helbestvanên Ereban re jî girt, ku Umer Ibin Elfarid (1181z) bi nasnavê (Sultan Elaşiqîn) navdar bû, Cizîrî bi zimanê Erebî gotara xwe eşkere diyar kir ku alaya wî di ser hemû alayên dildar û evîndaran re bilindtir dibe û raz û nîşanên wî dermanên aqil û dilan in, got:



Di 'işqê Şêxê sanî me bi dil berê me'anî me
(لذي حِجْرٍ وذي قلبٍ شفاءٌ في إشاراتي)
Di Iqlîmê suxen mîr im di şi'rê de cehangîr im
(ويعلو موكب العشاق أعلامي وراياتي)
(العقد الجوهري706-707 )

Di wê serdemê de xwendin û berhemdana bi Zimanê Kurdî yan nivîsîna li ser Kurdistanê, yan jî tenê binavkirina Kurd û Kurdistanê, ku navê Kurdistanê 4 caran di dîwana Cizîrî de hatiye, yan pesindana Mîrê Cizîrê li şûna pesindana Sultan û Şahan, dihate wê wateyê ku hesta neteweyî şîn dibû, ji ber ku ev yek, hingê ne karekî hêsan bû, bi taybetî di bin siha herdu desthilatên serdest û zordar ên Tirk û Farisan de, ku heta niha jî astengiyê li ber hizr û ramanên neteweyî dikin.

Berhem û dahênana bi Zimanê Kurdî, di sedsala 16em de, li bin siha desthilata Osmaniyan, bi xwe berevaniyek bû di ber hebûna Kurdan de, weke netewe û di ber Kurdistanê de, weke welat ji vî neteweyî re, ku Cizîrî hêvî dikir sînorên vî welatî ji hemû aliyan ve, berfireh û diyar bibin, bi awayekî ku Iqlîmê Çarem tevî li xwe bigire û têkeve bin fermandarî û desthilata Mîrê Cizîra Botan, Şerefxanê Azîzî, ku Cizîrî gelekî pê sersam bû, herwiha wî pesindana Mîr Şerefxan kire yek ji tewereyên sereke di mijara pesindanên xwe de.

Iqlîmê Çarem, ne tenê Kurdistan, lê belê Iraq û Girava Ereban li xwe digirt. Sînorê vî iqlîmî ji aliyê Hindê heta Hicaz, Şam, Nisêbîn û Xurasanê dikişe. Li cem zanayan di ser hemû parzemînên din re hate girtin, weke baştirîn kişwer, ku li gorî şarezayan, zemîn ji 7 iqlîman, wate kişwer yan parzemînan pêk tê. Iqlîmê Çarem, bi Iqlîmê Babil hate naskirin, ew jî navenda her şeş iqlîmên din bû, ku weke 6 bazneyeyan derdora vî iqlîmî digirtin. Her bi gotina wan, ew ji şeş kişwerên din jî kevintir û bi element, seqa û keşûhewaya xwe, baştir e.

Hevterîpî rewşa herdu sedsalên 16em û 17em, çirûskên hizra neteweyî ya Kurdî dest bi diyarbûnê kirin. Melayê Cizîrî di heman serdemê de dijiya û li heman navçeyên di navbera herdu imperatoriyên Osmanî (1299-1922) û Sefewî (1501–1736) de, helbestên xwe hûnandin, li wan navberên ku meydanên şer û pevçûnên giran bûn.

Cizîrî hêviya xwe bi statûyeke Kurdî xweş dikir, wiha jî dixwest ku desthilata mîrên Kurdan cîhanê tevî bigire, weke mînak pesnindana wî ji Mîr Şerefxanê Azîzî re, ku ew bi xwe dijraberî desthilata Osmaniyan bû, êdî ev pesindan bercestekirina helwesteke neteweyî bû, ji aliyê Melayê Cizîrî ve.




## Tiştonek



A: Mahir Berwarî

**1. Hevcar/Hincar**
- Şeq şeq şeqşeqî, kete erdî, erd peqî.

**2. Şixarte**
- Sed terim yê di tabîtekê da.
- Çum bajarê lakêşe, hemî mirovên li wir, ser sor in bin

**3. Mencilok/Derguş**
- Diya mirî, devê beş.

**4. Xencer**
- Vî alî dar, wî alî dar, di navda 2 têşkêt har.
Hêrve dar wêve dar, yê di nav da kûçkê/seyê har.

**5. Cerê rûnî.**
- Hêrve ax, werve ax, di navda mîr bidax.

**6.Lanik**
- Ho dilivit, ho dicivit, ezman nîne pê baxivit.
- Herîşan û perîşan, cihê axa û feqîran.
- Siwarê me bi nîşan e, li ser maîna bê giyan e.

**7. Tirpan/şalok**
- Helotirr, melotirr, sîng sipî yê mil kutir,

**8. Tizbî**
- Hindî dikêşit, xilas nabit.

**9. Mencela ser agirî**
- Helhey har e, reşwêley siyar e.

**10. Bîcame**
- Dara du tayi, di te hildayi.

**11. Xizêm**
- Ya zer e, li guştî hate der e, ya bi per e, ya kêm ser e.

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî

- Rojnameya "Agirî" di van malperên jêrên de bixwînin:
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
- rojnamaagiri@gmail.com
- www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (290)

# Hevdîtina Birêz Mistefa Hicrî û hevriyên wî, digel malbatên şehîdên vê dawiyê ên PDKÎ













## Guherîna sîstema serokatiyê li Tirkiyê dijberên cidî hene



**Behsa guherîna sîstema serokatiyê li Tirkiyê, behseke germ e, û vê yekê di navbera gellek ji siyasetvanan û partiyên siyasî de, alozî çê kiriye.**

Li gora nûçegihaniyan, Serokwezîrê Tirkiyê Bînalî yildirim daye xûyakirin ku AKP û MHP wê bi hev re kar ji bo guherîna destûra Tirkiyê bikin.

Navbirî tevî vê ku destbiserkirina HDP'yiyan wekî serkevtinekê ji partiya xwe re bi nav kir, got ku, me ew girtin, û wan jî serî tewandin.

Piştre bas ji vê kir, ku em guh nadin Ewropiyan, û ew nikarin dersa rêzgirtina ji yasayan bidin me, û emê digel MHP'ê bi hev re destûra nû ava bikin, û sîstema serokatiyê cihgir bikin.

Ji aliyekî din ve, CHP wê dest bi xwepêşandanên berfireh bike, li dijî girtina parlemantarên HDP'ê, û li dijî hewildanên AKP'ê, bona guhertina destûra Tirkiyê.

Serokê CHP'ê ragehandiye, ku partiyek ku azadiyan binpê dike, demokrasiyê ji nav dibe, rojname û kovar û televîzyonan dadixe, nikare destûreke demokratîk ava bike.

Ew gotinên serokê CHP'ê jî, bê bersiv neman, û dadgeheke Tirkiyê daxwaza dadgehîkirina Qilîçdaroxlo kiriye, û ragehandiye ku ew helwestên serokê CHP'ê di berjewendiya terorîstan de ne.

Her di çarçoveya zextya hikûmeta Tirkiyê li ser kovar û rojname û televîzyonan û siyasetvanan de, roja borî dîsan biryara ragirtina çalakiyên 370 rêkxirawên civaka medenî û sivîl û yên parêzerên mafê zarokan jî hatin dayîn.

Deshilatdarên Tirkiyê ragehandiye ku belge li ber destên me de hene, ku ew rêkxiraw piştgirê kûdetaya 15'ê Tebaxê, û terorîstan bûne.

Komîsyona YE derheq wan hemû binpêkariyên mafê mirovan ji aliyê Tirkiyê ve raporeke 102 rûpelî weşandiye, û tê de bas ji nemana dadgehên xweser, dewleta maf, mafê mirovan û azadiya ramanê û rojnamevaniyê li Tirkiyê kiriye. Li gora vê raporê ji her pênc dadwer û serdozgeran, yek ji wan ji kar hatiye dûrxistin.